Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 162
06'ê Tîrmeha 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdi

**Komîsyona Teşkîlatê ya PDK Îranê bi boneya** 22'mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo bangewazek arasteyî xelkê Kurdistanê kir
R: 2

**PDK Îranê di daxuyaniyekê de** piştewaniya peyama Kebûdwend kir
R: 7

**Guhertina rejîma Beşar Esed, kabûsa** rejîma Tehranê ye
R: 7

**Cudakirina keç û kuran** di zanîngehên Îranê de dest pêkir
R: 9

Di rewşek tewaw ewlehî de,

## Kurdistan ber bi mangirtinek giştî ve gavan hildigre




**Xelkê welatparêz yên Kurdistanê rêberê jêhatî, mêrxas û xebatkare xwe qet ji bîr nakin û bi awayên cur bi cur dixwazin emegdariya xwe bi rê û şopa wî nîşan bidin.**

**Îsal jî serbarê mîlîtarîzekirina Kurdistanê ciwanên welatparêz bi her awayî ku ji destê wan hatiye, dest bi bilavkirina trakt û wêneyan, û nivîsandina diruşmên pêwendîdar bi 22'ê Pûşperê kirine û dixwazin di roja 22'ê Pûşperê de jî li ser bingeha bangewaza PDKÎ dest bi gireveke giştî bikin û bi daxistina dukan û bazaran bi rêberên terorîst ên rejîma Îranê biselimînin ku riya Dr. Qasimlo heya gihîştina bi armancên wî, wê her dom hebe, û ew rêber dê bo heta- heta di nav dilê xelkê xebatkar ê Kurdistanê de bijî.**

## Ehmed Turk: Emê parlementoya kurdistanê ava bikin

**Ehmed Turk, parlementar û siyasetvanê kurd li Turkiyê ragihand ku wan soz bi xelkê kurd daye heya ku parlemantoyekê bo kurdan ava bikin.**



Navhatî da eşkere kirin ku kurd niha mijûlê xebata rizgarîxwazane ne û li hember perlementoya Enqerê de jî bêbedîl nabin û hewce ye hemû kesek jî rewayî bi şerê rizgarî û azadîxwaziya kurdan bide. Turk domand ku ew sorin li ser cî bi cî kirina ew sozên ku bi gel dane û perlemana kurdistanê dê ava bikin, lê hûrdekariyên zêdetir eşkere nekirin. Li hember axaftina Erdoxan jî ku gotibû ew dê peşîman bibin û bi neçarî dê vegerin bo perlementoyê, Turk ragihand:

Gefên Erdoxan filisekê nahînin û me kurdan natirsîne û emê berdewam bin bo şer û xebata rizgarî û bidestxistina mafên xwe.



### Ber bi siberojek bi hêviya tavê

Ebdulla Hicab

Gelo sedemên koçberiya kurda di dema nû de çi ne û bi giştî kî ne yên ku welatê xwe bi cî... R: 3



### Serdeşt, birînek xedar û jibîrnekirî

Arîn

Pûşpera 1366'an a Serdeştiyan biferq bû li gel hemû roj û mehên salan, Kele kela şerê Îraq û Îran dagirtibû bajarê kirr û mat,...



### Terora Herîrî û sêkoçkeya terorîzmê

Senar Hatemî

Piştî şeş sal lêkolînan bi ser terora Refîq Herîrî, Serokwezîrê berê yê Lubnanê ku li ... R: 7



### Dengê Hesen Zîrek tucar namire

Kewêzer

39 sal bi ser koça dawî a hunermend Hesen Zîrek de derbas dibin, lê hêj deng û... R: 11

# Gaziya Komîsyona Teşkîlat a PDK Îranê bi boneya 22 mîn salvegera terora Dr. Ebdulrehman Qasimlo

**Hevwelatiyên birêz!**

Civatên berxweder ên xelkê Kurdistanê! Rabûna bayê azadî û demokrasiyê di devera dîktatorlêdayî a Rojhilata Navîn de, vîn û enerjiya şoreş û guhertinan di welatê me de jî xistiye kar û egera hiloşîna rejîma kevneparêz a Komara Îslamî û ji hev qelaştina çiq û kerên wê di deverê de pêtir ji hemû demekê xwe derdixe holê. Bi lerizînketina koşka sitema dîktatoran li hember bahoza hêza demokrasîxwazî û mirovserdestiyê de bûye sedema lawazî û şikesta binajoxwazî û fendemêntalîzma ayînî di qada siyasî a deverê de û civaka cîhanî ji vê gefa biecîner rizgar kiriye ku Xumênîzm û Talibanîzm tenê altirnatîvên dîktatorên serberedayî ên rojavayê ne.

Di wiha rewşek de pirsa demokrasî û mafê mirov û mafê netewan pêtir ji herdem ev derfete jêre berhev bûye ku cihê taybetî û hêjayê xwe di rojeva siyaset û dîplomasiya zilhêzan û welatên pêşkevtî û xwedî hêz de veke û di vê heyama kin de heya qasekê guherîn di siyasetên Rojavayê li hember pirsa demokrasiyê di welatên devera me de dixuye.

Tepeseriya hovane a tevgera dekomrasîxwazî a xelkê Îranê ji aliyê Komara Îslamî ve di heyamên salên derbasbûyî ji aliyekê ve civaka cîhanî gihand vê bawerê ku hebûna wiha rejîmekê tevî pêdvêyiyên cîhanek azad û pêşkevtî de hevgav nine û ji aliyek din ve pûçbûna hizra çaksazî û reformên hikûmetî di Komara Îslamî de bo hemûyan eyan bû.

Di rewşa niha de civaka cîhanî pêtir ji caran amadeyî bihîstina dengê netewên zulmlêkirî û pirsa Îranê di siyaseta navnetewî de bi pirsa netewên Îranê ve hatiye girêdan.

Di 22 mîn salroja koça sor a rêberê jêhatî yê gelê me, şehîd Dr. Ebdullrehman Qasimlo, bi pîlana terorîstî a mirovkujên Komara Îsalmî li bajarê Viyena Otrîşê de, Pûşpera îsal derfetek e bo nîşandana yekîtî û berxwedana xelkê Kurdistanê li hember siyaseta teror û wehşeta rejîma Komara Îslamî û gihandina dengê rewa yê xebata mafxwazane a netewa me bi kom û civatên navnetewî.

**Hevnîştimanên hêja!**

Komîsyona Teşkîlat a PDK Îranê bi erkê ser milên xwe dizane weke hemû salan di roja 22'ê Pûşpera îsal de hin rê û cihên diyarîkirî bo rêzgirtin ji yad û bîranîna wî rêberê jêhatî yê gelê me rabigehîne ku hevkarî û hevxebatiya dilsojane a we di vê derheqê de dê bibe alîkarê serkevtina wan rê û cihan û herweha nîşanderê emegnasiya we li hember xebat û cangorîtiya şehîd Dr. Qasimlo û hemû şehîdên riya rizgariya Kurdistanê ye.




**Ew xal û rê û cih, pêkhatî ne ji:**

1. Belavkirina tirakt û poster û belavokên taybet bi vê rojê û şandina kurtenameyan bo haydarkirina hev û du di vê pêwendiyê de.
2. Daxistina dukan û bazaran li hemû bajarên Kurdistanê di vê rojê de.
3. Mifahstandin ji rengê şînê esmanî bo hemû cure çalakiyekê.
4. Temirandina çirayên malên xwe bo demê 3 deqîqeyan di şeva 22'ê Pûşperê de, demjimêr 10 ê şev bi dema Tehranê.
5. Xwe parastina xelkê gundan ji hat û çûna bo bajaran.
6. Lixwekirina kincên Kurdî, bi taybetî kirasên şîn û hatine der bo ser şeqam û cihên giştî di êwariya roja 22'ê Pûşperê de.

**Komîsyona Teşkîlat a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Pûşperta 1390'a Rojî**
**Tîrmeha 2011'an a Zayînî**

## Sergotar

## Ber bi mangirtina giştî ve

**Selîm Zencîrî**

22'ê Pûşperê ji bo gelê kurd û hizba demokrat bîranîna rojek tal û nexweş e. Li wê rojê de dujminê hov û şevperestên Komara Îslamî hemû kerb, kîn û nefreta xwe ji gelê kurd û PDKÎ kom kirin û kirine gulleyek û di pîlanek necamêrane û terorîstî de li ser maseya got û bêjê li sîngê Dr. Qasimlo dan û ew şehîd xistin.

Teror kirina dr. Qasimlo xesarek mezin bû ji tevgera demokrasîxwazî û aştîxwaziya Îran û kurdistanê û li heman dem de birînek xedar û jibîr nekirî ye ji cismê tevgera kurd û hizba demokrat. Dr. Qasimlo rêberek jêhatî, pêşmergeyek fîdakar, xebatkarekî aştîxwaz û kesatiyek navnetewî û pirrçek bi zanista serdem bû. Bîr û baweriyên aştîxwazane yên wî giraniyek taybetî dabûn kesatî û pêgeha wî. Hêz û şiyanek ku wê demê nimûne û kesayetiyên wek wî bi gotina kesatî û siyasetvanên cîhanî li rojhilata navîn û nemaze li cîhanê de kêmmînak bû. Lewma şevperest û bêmejî û serhişkên Cemaranê çavê dîtina kesayetiyekî bi wan hemû taybetmendiyan ve tunebûn lewrea wek pîşeyê hertimî yê xwe ew bi cisim ji me standin. Lê bêhay ji wê ku bîr û hizr û ramanên Dr.Qasimlo dê hertim li nav hevrêbazên wî de zîndî û ronahî bimîne û weke rûbarek herikbar qet ji herikînê nesekinin û pêlan vede.

Berdewamiya rêbaza Qasimlo, emegnasiya hevbîr û hev çeperên wî jêre û herweha wefadariya xelkê kurdistanê bi taybetî li salvegerên terora wî bi nîsbet Dr.Qasimlo eyankerê vê rastiyê ye ku ew tenê bi cisim li nav me de nine û bîr û hizrên wî weke kaniyek zelal diqulqule û bûne bi çirayê riya tekoşîna me.

Êdî şevperestan re jî derketiye ku li pîlana xwe de serneketin û Qasimlo li rêbaza xwe de her zîndî û keç û xort, tex û qatên cur bi cur ên civaka kurdistanê her tim deyndarê Dr.Qasimlo ne û ya ku ji destê wan bê him bo rêzgirtin û emegnasî bi Dr. re û him jî bo şermezar kirina terorîzma Komara Îslamî, dê encam bidin; vêca her ji çalakî û nerazîbûnên medenî re bigre heya mehkûm kirina Komara teror û nezaniya Îslamî a Îranê.

Rejîm jî bi hemû hêz û qaweta xwe ya ewlehî, nîzamî û teşkîlatî nekariye emegdarên Qasimlo biçok de bîne û wan teslîmî îradeya xwe bike. Berevaj biwêrî û îradeya polayîn, cesûrî û fedakariya bêmînak a wan tim rejîm biçok de aniye, êdî 22'ê pûşperê bûye sembola berxwedan û kopika xebata medenî-netewî.

Niha piştî 22 salan bi ser wê kiryara dijî mirovî de, serbarê rê û cihên tund ên ewlehî, çavsorî, gefxwarin û girtin û işkence û tirsandina xelkê ji aliyê hêz û dezgehên rejîmê ve, lê xelkê kurdistanê micidtir û rijdtir ji salan ber bi pêşwaziya wê rojê ve diçin û dixwazin bi rênimayî ên partiya Qasimlo, kurdistanê bikin keleha berxwedanê û bi mangirtinek berîn, rûreşiya rejîmê pirotesto bikin û serê rêz û emegdariya xwe bo Qasimlo kurnoj bikin û biselimînin ku heta kurd bimîne, Qasimlo jî dê her bimîne û qet namire.

## Bi munasibeta 22'mîn salvegera teror kirina Dr. Qasimlo û hevalên wî, çend civîn û rê û resmên girseyî hatin lidarxistin

Bi boneya 22'mîn salvegera teror kirina dr. Qasimlo û hevalên wî li ser maseya got û bêjê ji aliyê dîplomat terorîstên Komara Îslamî ve, îsal çalakiyên cur bi cur bo rêzgirtin ji wan şehîdan û şermezar kirina siyasetên terorperweriya Komara Îslamî a Îranê li navxwe û derveyî kurdistanê hatin lidarxistin ku li hundirê welat de endam û alîgirên PDKÎ bi belavkirina trakt û durûşm û wêneyên dr. Qasimlo û PDKÎ ber bi pêşwaziya vê rojê ve diçin û xwe amadeyî mangirtinek berfireh dikin. Li herêma Kurdistanê jî çend semînar û rê û resmên girseyî bi vê hincetê li bajar û deverên cur bi cur ên kurdistanê hatin lidarxistin ku emê tenê îşare bi sernavê wan bikin û zaniyariyên zêdetir li vê derheqê de hûn dikarin li ser malpera kurdistanmedia.com/kurdi bidest bixin.

-Birêve çûna rê û resmekê li 5'ê Pûşperê de bi hevkariya komîteya eşkere a PDKÎ li bajarê Raniye, ku têde Kawe Behramî, endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê peyamek pêşkêş kir.

-Birêve birina rê û resmek berfireh li 8'ê pûşperê bi hevkariya komîteya teşkîlata eşkere a PDKÎ li devera Soran ku têde birêz Rostem Cehangîrî, endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê peyamek pêşkêş kir.

-Birêve birina rê û resmek din ji aliyê komîteya Teşkîlata eşkere a PDK Îranê li devera Germiyanê li 11'ê Pûşperê de ku têde Kerîm Perwîzî, endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê peyamek pêşkêş kir.

-Roja Yekşemî, 12'ê pûşperê li doma kar û çalakiyên rêzgirtinê de li bajarê Hewlêrê jî rê û resmek ji aliyê komîteya Hewlêr a teşkîlata eşkere ya PDKÎ hat lidar xistin ku têde birêz Têmûr Mistefayî, endamê Deftera Siyasî yê PDKÎ axaftinek pêşkêş kir.

-Roja Sêşemî, 14'ê Pûşperê li bajarê Silêmaniyê de jî, rû û resmek birêve çû kê têde rêzdar Heme Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ axaftinek derheq terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî de pêşkeşî beşdaran kir.



# Ber bi siberojek bi hêviya tavê (beşa 2 û dawî)



Ebdulla Hicab

Gelo sedemên koçberya kûrda di dema nû de çi ne û bi giştî kî ne yên kû welatê xwe bi cî dihêlin?

Di serî de rewşa siyasîye Kûrdistanê, bindestiya neteweyî û serhildana gelê Kûrd li hember wê rewşê, kû bi xwe re şerê rizgarîya neteweyî û pêşveçûn û paşve gav avêtinên siyasî û leşkerî tîne pêş hegerê bingehîne koçberya wê beş ji civaka Kûrdisatnê ye kû bi siyasetê ve mijûle. Di gel koçberya bi komîye bi hezaran malbatên kûrd bo welatên cînar, grûpek ber bi çav ji wan penaberên siyasiye kûrd jî hatine Ewrûpa. Salên 1975-80 ji Başûrê Kûrdistanê, salên 1984 û pêve li Rojhilat û bi kêmî ji Bakûrê welat re gelek têkoşerên siyasî welatê xwe bi cî hêlan û riya koçberiya nexwestî girtin pêşiya xwe. Di gel kû rêjeya wan koçberan zêde ye, lê koçberên kû ji ber sedemên derveyî siyasetê welat bi cî hêlan û bi sedanhezar ji wan niha li Ewrûpa û welatên Rojava dijîn çendîn qat ji wan pitir e.

Sedemek din ya bingehîne serhildana diyardeya koçberiyê zêdebûna şêniya welat û tûnebûna îmkana kar ji bo nivşên nû ye civakê ye. Dema kû li bajarên Kûrdistanê îmkanên kar û bi cîkirina xelkê li gor pêşveçûna hejmara rûniştvanan nebe, tenê rêçare dibe ew kû xelk welatê xwe bi cî bihêle. Li hemû parçên Kûrdistanê ew rewş bûye hegerê koçberyê, êdî ew koçberî ji bo herêmên derveyî Kûrdistanê be an bi yekcarî bo Rojava. Bi gûlvedana abûrî li derveyî Kûrdistanê, bi taybet ji salên 1960 û pêve, bi miliyonan Kûrdan welatê xwe bi cî hêlan û ketin pey karê bi dahat li dervey ciyê jiyana xwe. Piranya wan çûne deverên dine welatên kû bi ser Kûrdistanê de hûkim dikin. Weke pêwîstîyek xwezayî, jiyana xweş li serveyî her tiştekiye û mirov her tim lê digere heya rewşa jiyana xwe xweştir bike. Dema kû li deverek din - weke Ewrûpa- îmkana kar û jiyanek hê xweştir hebe, gelik asaiye kû ew kesên bikaribin û hez bikin, yê wê riyê biceribînin. Ji ber wê yekê û ji ber hebûna derfeta derketina ji welat, dema kû bazara wekiryê kar li Ewrûpa di salên navbera 1960-1980 de karker pêwîst bûn, bi sedan hezar kûrd ji Bakûrê welat re hatin Ewrûpa. Piranya nêzîk bi tewayê koçberên wê qonaxê kûrdên Bakûrê welatin kû nêzîk yek miliyon ji wan li Alman, Feranse û Hollanda dijîn.

Ji sala 1995 û pêve grûpek nû ji gencên Başûrê Kûrdistanê bi alîkarya qaçaxçiyên mirovan re û bi pereyek zor riya Ewrûpa girtin pêşiya xwe. Lê ew grûpa nû bi astengiyên dijwar re rû bi rû man. Ji ber kû bazara kar li Ewrûpa êdî pir bûye, beşek zor ji wan kesan hê li benda qederê û di rewşek ne zelal de dijîn, ji ber kû piraniya wan hê mafê penaberiyê nestandine û ew bêmafî ji wan re astengiyek mezine. Hegerê koçberiya wê koma nû şer û netifaqî, nebûna ewlekariya jiyanê, bêkarî û pêşerojek ne zeal e kû wisan ew nivş bê hêvî kiriye kû astengên ser riya xwe nabîne û xwe bi av û agir dide.

Di hemû wan salên dawî de grûpek biçûke ji xwendekarên kûrd jî bi mebesta xwendinê welat bi cî hêlane û çûne dervey Kûrdistanê (deverên dine welatên kû bi ser Kûrdistanê de hûkim dikin an jî ç ûne bo Ewrûpa û Rojava). Heya îro komek gelik biçûk ji wan xwendekarane, bi taybet ewên kû li Rojava xwendine paşve zivirîne welat. Gelo ew koçber kî ne. Bi kûrtî mirov dikare koçberên kû ji Kûrdistanê re diçin derveyî welat bike sê beş. Her sê beşên wan koçberan jî piranî hê ciwanin û di temenê kar de ne. Ew sê beşên koçberên Kûrd pêk tên ji:

Xebatkarên siyasî kû piranya wan ji Başûr û Rojhilata Kûrdistanê û di wan salên dawî de jî beşek ji Bakûr û Rojavayê Kûrdistanê tên. Gelik ji wan koçberan li welatên Skandînaviya cîgir bûne û hejmarek ber bi çav ji wan bi riya Komîsarya Bilinde Penaberan ya Neteweyên Yekgirtî (KBPNY) re hatine Rojava. Lê hejmara ewan kesên kû xwe serî xwe û ji riyên din re hatine û paşan mafê penaberiyê sitandine jî ne kême.Karkerên ciwan kû ji kar digerin û li welatê xwe an di deverên cînar de kar peyda nakin. Piranya wan karkeran ji Bakûrê Kûrdistanê tên û beşa herî zêdeye wan li welatên navendîye Ewrûpa bi cî bûne û li wir kar dikin. Grûpa sêyem xizm û kesên wan kesanene kû pêştir hatine, li Rojava mafê jiyana herdemî girtine û niha kesên xwe yên nêzîk tînin cem xwe. Bi taybet di wan salên dawîn de bi hezaran kes ji Başûr û Bakûrê Kûrdistanê bi alîkarya xizmên xwe yên li Rojava dijîn bi dana pereyek zor derbasî Ewrûpa bûne. Ewane li gor piranya xelkê Kûrdistanê rewşek baştire abûrî hene û pereyek zor mesref dikin heya derbas dibin. Bi awayek giştî tenê gera li pey jiyanek xweştir wan kesan dikêşe ber bi aliyê koçberiyê ve.

Di gel encamên neyiniye diyardeya koçberiyê, ji bo gelê Kûrd weke neteweyek kû tû gav tama azadiyê nedîtiye û ji bo civaka Kûrdistanê koçberiyê astengî û êş û azarên pitir hene. Lê renge li kêleka wan êş û azaran hin qazanc (fêde) jî hebin. Di rewşa îro de kû bi kêmî 900 000 heta 1 000 000 koçberên Kûrdistanî tenê li Ewrûpa dijîn, heke mirov qazanc û zererên wê diyardeyê bide ber hev, gelo wê çi encam jê derkevin? Giringtirîn xesarên kû civak ji koçberyê dibîne wê çi bin?






Nivşek nû ya gencên Kûrd kû amadeyê karkirin û berhemanînêye welat bi cî dihêle û bi xwe re sermayekek mezin a kar û bîrkirinê ji welat derdixe. Civak bi wî awayî ji kar, zanîn û îmkana wan ya sazkirinê bê par û pişk dimîne.

Nivşek ji xebatkarên siyasî kû haya wan ji rewşa welatê wan heye û di qonaxek hesas de bare şoreşa Kûrdistanê li ser mile wan bû, welatê xwe bi cî dihêlin û êdî di nava têkoşîna navxweyî welat de namînin. Her çend nivşek nû ciyê wan tije dike, lê dûrketin ji xebata nava welat dikare bi xwe re nexweşiya pasîvbûn û ji gel û rastîyên civakê dûrketinê bîne.

Nivşa kû di wê dawiyê de Kûrdistanê bi cî dihêle, ji bo kû xwe derbas bike pereyek zor dide kesên kû mirovan ji riyan derbas dikin. Ew dirafê kû di wê rê de dibe mesref, dikare li welat bibe sermayeyek baş kû hem ji xwediyê xwe re bibe îmkana jiyanê û hem jî îmkana kar ji bo bi hezaran kesên din pêk bîne.

Lê di gel şûnwarên xirabe koçberî û bicîhêlana welat, dema kû koçber di nava xebatek bi rêkxistinî de cî digrin, ji bo azadiya netewea xwe kar dikin û têkiliya wan bi welat û xebata rizgariya neteweyî re berdewam dibe, ew yek dibe hêz û îmkanek bê hempa ji bo tevgera rizgariya neteweyî li Kûridstanê. Her ew têkoşîna bi bandor jî dikare ciyê xesara bicî hêlana welat tije bike. Di wan çend salên dawî de, em dibînin kû rola kûrdên koçber di xebata azadiya Kûrdistanê de û ji bo bi pêş xistina tevgera kûrdayetiyê çi qas bi bandore. Hin mînak ewin:

1. Li derveyî Kûrdistanê di navbera kûrdên hemû beşên Kûrdistanê pêwendî tê damezirandin û li gor rewşa jiyana nû ew pêwendî roj bi roj xûrttir dibe. Di encama wan têkilyan de û ji ber hebûna tevgerek xwedî rêkxistin ya neteweyî, şiyariya neteweyî zêde dibe û nasnameyek nû ya Kûrdistanî ji dayk dibe. Wekû kûrdnasê Hûlendî Martin Van Brûinessen dibêje: Cara yekê jiyana penaberî ya li derve kûrdên herêmên cûda cûdaye Kûrdistanê, bi pêşîneyên dûrî hev, anîne cem hevûdin û avakirina welat "Kûrdistanê" ji bo wan kire armanc.

Doma rûpela 3

2. Nivşek nûye genc bi nasnameya xwe ya Kurdistanî ve li koçberyê tê dinyayê. Bi taybet li welatên Rojava ew nivşa nû dixwîne û bi awayek baştir tê perwerde kirin. Ew nivşa nû pitir bi dîrok û koka xwe ve mijûl dibe hetanî dayk û babên wan. Pirsa nasnameya neteweyî, welat û sembolên neteweyî ji bo wan giringtir in heya ji bo nivşa berî wan. Dema zarok diçin baxçê zarokan an jî dibistanbanan, di gel zarokên hevtemenê xwe ku xwediyê nasnameya xwe ya neteweyî ne dilîzin, dirabin û dirûnên û di têkelyên di gel wan de bi xwe ji nasnameya xwe digerin. Gelik dayk û bab di bin karîgeriya zarokên xwe de paşve dizivirên ser esla xwe û ji nirxên xwe yên neteweyî û ji Kurdistanê xwedî derdikevin.

3. Ji ber qedexeya li ser zimanê kurdî û nav û nasnameya kurdî, jiyana koçberiyê li welatên Rojava û bi giştî li derveyî Kurdistanê îmkan daye rewşenbîrên kurd ku zimanê xwe yê nivîskî bi pêş bixin. Bi taybet Kurmanciya jorîn ku li Kurdistanê ji ber siyaseta qedexekirina li Bakûrê Kurdistanê bi pêş neketibû, li dervey welat îmkanên gulvedanê bi dest xist û heya qederek baş bingeha nûjenkirin û nivîsandina wê peyda bû.

4. Gera li cîhanê û jiyana koçberyê bû serekaniya dîtin û baweryên nûye siyasî jî. Pêwendî di gel cîhana Rojava deriyê îdeal û îdeolojyên moderne siyasî ji bo kurdan vekir. Ew dîtin û mektebên siyasî ku bi riya dewleta ve bi awayek destkarîkirî dihatin Kurdistanê, wê carê bi awayek raste rast, bi riya rewşenbîrên kurd bi xwe ve û bi awayek esil (orgînal) ketin nav civaka kûrdewarî.

5. Hebûna grûbek mezine hevwelatyên ku di warê neteweyî de şiyar bûne û di warê têkoşînê de hatine bi rêkxistinkirin, kariye bi çalakiyên cudaye siyasî û demokratîk, pirsa kurd bike pirsek navneteweyî. Ji xwe re nîne ku wezîrê karê dereve yê Alman Joschka Fischer li dema gera xwe ya Enqerê di sala 2000 de digot heke Tirkiye înkara pirsa kurd bike, dibe ez bêjim ku "me li Alman pirsa kûrd heye". Gotina serkeye wê basê ewe kû 1) koçberî û bi cî hêlana welat diyardeyeke jiyana hevdeme ku li gor rewşa siyasî, abûrî û demografiye civakê peyda dibe û ji ber nebûna îmkanan ji civaka nêzîk re penc dawêje deverên dûr. Sekinandina pêla penaberyê bi serrastkirina mercên siyasî, abûrî û civakî re girêdaiye. Her çawan ku ew diyardeya bi xwe bi komek hokaran re girêdaiye, rêçareya wê jî her bi wî awayî bi gelek pirsan re girêdaiye.

2) Ger girêdana bi welat û xebata welatparêziyê re hebe, destketên zanistî, siyasî û abûriye mirovan li dervey welat dikare bibe sermayeyek herî xurt ji bo pêşeroja welat.

# Rejîm li jêr bahoza tehrîman de ye

**Rûken**

Piştî vê ku Ehmedînijad bû serkomarê Îranê û nakokiyên di navbera Îranê û Konseya Ewlekariya NY de zêde bûn, du biryarnameyên tehrîmî bi ser Îranê de hatin sepandin.

Ew biryarname jî li gorî beşa heftemîn ya menşûra NY bû, ku têde bas ji "Gef, yan jî binpêkirina aştiyê di cîhanê de" hatiye kirin. Esla 42, beşa heftemîn ya vê menşûrê, vê îznê dide ku bona cîgirkirina aştiyê biryarên hewce bêne dan, heta eger hewceyê bikaranîna hêza leşkerî jî be.

Piştî vê ku çar biryarnameyên tehrîmî ên Konseya Ewlekariyê bi ser Îranê de hatin sepandin, DYA û YE'ê her yek ji wan gellek tehrîmên yek alî yên berfirehtir û tundtir ji NY bi ser Îranê de sepandin, ku bê şik wan tehrîman berevajiyê îdiaya deshilatdarên Îranê, bandora xwe li ser programa navikî ya rejîmê hebûye.

Her di çarçoveya wan tehrîman de vê carê jî Amerîkayê hinek tehrîmên nû bi ser rejîma Îranê de sepandin û şîrketa balafiriya Homa (Iran Air) tehrîm kir.

Wezareta Xezanedariya Amerîkayê li 23'ê Hezîranê, di daxûyaniyekê de ragehand ku şîrketa " Îran Êyr", ji riya balafirên xwe ên musafirhilgir ve rokêt û muşekan bo derve dişîne û gellek caran konterolkirina wan balafiran di destê efserên Sipahê de ye.

Amerîkayê piştî vê daxûyaniyê ragehand ku civaka navnetewî divêt tehrîmên bi dijî Îranê tundtir û berfirehtir bike.

Ferhad Perweriş berpirsyarê şîrketa balafirî ya "Îran Êyr", di vê deheqê de ragehand ku em ji wan tehrîman bona pêşkevtinê mifahê werdigrin, û niha hêz û şiyana me ya çîkirina balafirên ku têk çûbin,gellek zêde bûye.

Ew gotina navbirî di demekê de ye ku li ser bingeha serjimêriyên çavkaniyêt fermî di 10 salên borî de, li hinda esmanê Îranê 12 bûyerên ketina balafiran hebûye û 915 kesan jî di van bûyeran de canê xwe ji dest dane.

Herweha gellek ji karnasên veguhastin û rabûna balafiran li ser vê baweriyê ne, ku bûyerên ketina balafiran ji sala 57'an pêde çavkanîgirtî ji tehrîmên abûrî ên navnetewî bi dijî Îranê ne.

Di daxûyaniya Wezareta Xezanedariya DYA'ê de, şîreketa sermayedanînê ya bi navê "mêhr êqtesadê Îraniyan" bi sedema têkiliya bi Mêhr Bank û Sipaha Pasdaran re û şîrketa "Taydwatêra Rojhilata Navîn" ku ser bi Sipahê ye di warê xizmetên li ser bender û deryayan çalakî heye.

Herweha vê binyatê, hemwelatiyekî Îranê bi navê şehryarî û şîrketa bazerganiya vê ku bi nûneratiya şîrketa gemîvaniya " Laynêr Transpurt kîş" hevkariya çek û teqemeniyan bi Hizbullah re dikin, tehrîm kiriye.

Berî vê jî li roja 20'ê Hezîranê Wezareta Xezanedariya Amerîkayê bi derkirina daxûyaniyekê biryara tehrîmê bi ser deh şîrketên veguhastinê ên ser bi xetên gemîvaniya rejîma Îranê di çar welatên cîhanê de, û herweha bi ser sê kes ji berpirsyarên vê şîrketê seba pêwendiya di gel pirograma navikî û muşekî ya Îranê de sepand.

Pêştir jî wezareta Xezanearîya Amerîkayê xetên gemîvaniya rejîma Îranê di Septambera 2008'an de seba vê ku hevkariya Wezareta Parastina Îranê kirine, û herweha di xizmeta wan hêzên çekdar de bûne, tehrîm kir.

Di wan çend salên borî de, bi taybetî di dewrana serkomariya Ehmedînijad û tundtirbûna programa navikî ya Îranê, welatên rojavayî îdia dikin ku hinek belge dest wan ketine ku nîşan didin rejîma Îranê di hewla destpêregihîştina bi çekên navikî ye, lewra wan jî bona pêşî girtina ji wan hewlên Îranê dest bi sepandina tehriman kirin.

Piştî vê ku konseya ewlekariya NY di sala 2010'an de, dawî biryarnameya xwe ya tehrîmî heya niha bi ser Îranê de sepand, DYA û YE'ê çend tehrîmên din ên yek alî bi ser Îranê de sepandin. Ji wan tehrîmên yek alî ên Wezareta Xezanedariya Amerîkayê em dikarin îşarê bi tehrîma Banka Dewletî ya "Senet û Meiden" ya Îranê û Banka Milet, û Banka Ticarî ya Îran û Ewropa, û hêzên Sipah, Besîc û polîsê Îranê bikin.

Her çend berpirsyarên rejîmê berdewam îdia dikin ku ew bi wan tehrîman nakevin jêr barê xwastek û daxwaziyên civaka cîhanî û tehrîm bi giştî bê bandor in, lê karnasên warê aborî bi xatircemî ve basê bandora tehrîman dikin û daxwazê ji Konseya Ewlekariyê dikin ku berdewam be li ser sepandina tehrîmên bi vî awayî heya vê demê ku rejîm naçar bi qebûlkirina xwastek û daxwaziyên civaka cînaî be.



# Aloziyên Sûriyê û cîranên oportonîst



Şehab Xalidî

Sala 1922'an li gorî biryara Komeleya Neteweyan ew herêmên ku li jêr deshilata Osmaniyan de bûn, di navbera Brîtanya û Feransê de hatin parvekirin û di encamê de Îraq û Urdon û Filistîn ber Brîtanya ketin, û Sûriyê û Lubnan jî li ber Firansayê ketin. Di Nîsana sala 1946'an de ew welat ji destê dagîrkariyê rizgar bû û deshilatek Komarî têde hate avakirin.

Di vê qonaxê de jî ku asayiş û ewlehî di Sûriyê de seqamgîr bû, piraniya Elewiyan gund û çiya berdan û rû li bajaran kirin. Di sala 1970'î de Hafiz Esed dewleta xeyrî leşkerî ya vî çaxî li ser kar rakir û bixwe deshilat bidestve girt. Navbirî bilez dest bi qahîmkirina pêkhateya deshilata xwe kir.

Navbirî di sala 1971'ê de meclîsek bi navê "Civata Gel" ava kir û rolê Elewiyan jî di deshilatê de pirr reng kir. Di sala 1982'an de Hfiz Esed serhildana xelkê "Hema"yê bi xwînê sor kir ku li encam de bi hezaran kesî canê xwe ji dest dan. Dema ku di sala 2000'î de Hafiz Esed koça daviyê kir, deshilat kete destê Beşar Esedê kurê nabvirî de.

Sûriyê di heyamê çend salên borî de gellek hewil da ku li sînorên di navbera wan û Îsraîlê de ewlehiyekî tewaw hebe û qet jî carek din bona bidestxistina bilindahiyên Gulanê (Colanê) hewil neda. Amerîkayê jî gellek hewil da ku bi sedema girîngiya Sûriyê di warê pêkanîna aştiyê di Rojhilata Navîn û cîgirkirina ewlehiyê di Îraqê de ji vî welatî nêzîk be, lewra têkiliyên Amerîka û Îsraîlê heya wan daviyane jî bi Sûriyê re pêwendiya ne şer, ne aştî bû.

Lê piştî vê ku bayê "Buhara Ereb" rû li welatê Sûryê kir û pêpkên deshilata Beşar Esed lerizand, wî jî wek bavê xwe riya tepeseriya meşvanan girte pêş û di pêxema parastina deshilata xwe de dest ji tu cînayeteké hilnegirt. Lewra rojavayiyan piştî behs û gengeşeyekî zaf biryara tehrîman bi dijî Beşar û çend deshilatdarên din ên payeberz ên vî welatî ku di kuştina xelkê Sûriyê de dest hene pesen kir.

Yek ji wan welatên ku cîranê Sûriyê ye û hinek caran hevraz û nişîv di pêwendiyên wê di gel Sûriyê de hebûne û niha jî ji tepeseriya xelkê medenî li Sûriyê nerazî ye dewleta Turkiyê ye.

Çend salan berî niha seba vê ku Ocelan rêberê PKK'ê di welatê Sûriyê de dijiya û li jêr xext û fişara Turkiyê de bû û hinde jî nemabû ku şerekî giran lê bikeve, lê piştî vê ku Sûriyê navbirî ji welatê xwe derkir, pêwendiyên di navbera wan de heta astekê asayî bûn.

Niha ku Turkiye ji pêvajoya gotûbêjan bona tevlîbûna bi YE'ê re gellek nerazî ye û heyameke ketiya nava hewildanan de bona vê ku bi dîplomasiyekî gellek çalak cî piyê xwe zêdetir ji rabihurî di nav welatên herema Rojhilata Navîn de veket, Turkiye di van çend salên daviyê de hewil daye ku bi pêşkêşkirina modêlekî nû ya Îslamiyetê bibe mînak ji welatên misilman re.

Lê niha ku Turkiyê siyaseta tepeserkirina neyarên xwe girtiye pêş, Turkiye wek welatekî heya astekê demokratîk dixwaze ji vê derfeta ku jêre bo nîşandana rolê xwe wek welatekî xwedînifûz li herêmê de pêk hatiye mifahê bistîne û rolê navbeynkariyê bilîze. Her wek vê navbeynkariya ku dema xwe di navbera Sûriyê û Îsraîlê de encam da. Yan wek vê navbeynkariya ku di navbera rojavayiyan û rejîma Îranê li ser pirsa navikî ya Îranê encam da û rejîma Îranê razî kir ku Oranyoma xwe bona mehandinê veguhêze bo xaka Turkiyê.

Her di vê rastayê de Turkiye ji aliyekî ve dixwaze pêwendiyên xwe di gel rejîma Beşar Esed biparêze,lê ji aliyekî din ve rê dide bi penaberên Sûrî ku ji tirsê kuşt û kuştarê bêne nav xaka Turkiyê û heta di vî warî de alîkariyekî baş jî bi wan re kir. Herweha dewleta Turkiyê ji bilî vê ku rê da penaberên Sûrî ku bêne nav xaka vî elatî, îzin jî da opozisyona Sûriyê ku li bajarê Antalya de konferansekê birêve bibin, ku ew helwestên dewleta Turkiyê pêwendiyên di navbera her du welatan de xiste nav qonaxekî nû ji aloziyan.

Dewleta Turkiyê bi wan helwest û kiryarên xwe ji aliyekî ve dixwaze biselimîne ku piştevanê mafê mirovan e, û ji aliyekî din ve dixwaze li hemberî rojavayiyan de radeya bi bandorbûna xwe di warê çareserkirina kêşe û aloziyên herêma Rojhilata Navîn de nîşan bide. Hewlên Turkiyê bi sedema vê ku cîranê Sûriyê ye, berevajiyê hewlên welatên rojavayî ji bo çareserkirina kêşe û aloziyên herema Rojhilata Navîn wek destêwerdan nayê hesêbandin.

Xalekî bi hêz ku Turkiyê li çav welatên din ên herêmê heye eva ye ku Turkiyê hem pêwendî di gel rojavayiyan heye û hem jî tevî opozisyona Sûriye û Îranê. Lewra Turkiye li çav welatên din ên herêmê dikare bandora xwe li ser bûyerên Sûriyê hebe û bi vê siyaseta nerm ku di herêmê de girtiye pêş rolê xwe di vî warî de bi başî bilîze.




# Bîranîna serhildana Şêx Seîdê Pîran




Di 8'ê Sibata 1925'an de serhildan li Pîranê dest pê dike, di du roj piştre 10ê Sibatê de, birayê Şêx Tahîr bi komîteya Licê re dest dide ser postexanaya herêma bi navê Licê. Di navbera çend saetan de hemû dem û dezgehên dewletê tên dagîrkirin û kontrola birêvebiriyê dikeve destê komîteya şoreşê.

Şêx Seîd ji 8 kesan Konseya Şer ava dike.

Di dawiya şerekî dijwar de, di rojên 7 û 8'ê Adarê de hevalên Şêx ji derê Mêrdînê ve dikevin hundirê bajêr û dest didin ser gelek top û cebilxanan.

Lê dijmin gellek eskeran dişîne Mêrdînê û di riya Mêrdînê digijîne alîkariya hêzên xwe yên nav bajêrê Amedê. Hêzên Şêx Seîd li hember wan top, tank, balafir û eskerên dewletê bêgav dimînin û xwe ji bajêr û derdora bajêr bi paş ve vedikişînin.

Di 27'ê Adarê de hêzên herêmên Licê û Darahênê bi paş ve, ber bi çiyayên Licê ve vedikişin.

Çend roj piştre Di 3-8 Nîsanê de eskerên Tirk hemû herêmên Licê, Darahênê û Cebexşûrê digirin bin kontrolê. Di 14 Nîsanê de jî Şêx seîd dikeve destê hêzên Tirk.

. Di 10'ê Gulana sala 1925'an de Şêx Şeîd û 49 hevalbendên wî derxistin Dadgeha Dîyarbekirê.

Li gorî begleya serokê dadgehê weha gote Şêx Seîd û hevalên wî ku " Hin kes ji we ji bo berjewendiyên takekesî û ên din jî ji ber girêdayîbûn bi dujminan beşdarî vê bizavê bûne, lê hûn hemû xwediyê yek armancî bûn ku ew jî avakirina Kurdistana serbixwe bû. Tevgera xwe encama çend sal hewldan ji bo tevlîhevkirina herêmê bû, lê eva arteşa Komara Turkiyê bû ku bizava we bi awayekî herî baş kontrol kir. Hikûmeta Turkiyê tu çalakiyek siyasî û leşkerî a li dijî xwe napejirîne".

Bi vî awayî biryara îdamê bi tawana avakirina Kurdistana serbixwe bi ser Şêx Seîd û 49 hevalên wî de hate sepandin, û ew biryar li 29'ê hezîranê de bêrêve çû.

# Biryarek neyasayî û siyasî



Selîm Zencîrî

Ji ber ku Turkiye bêper e ji sîstemek tewaw demokratîk, kirîz li pey kirîzê pêsîr û berçêla wî welatî digrin. Bi tayebtî ku niha parlementoya wî welatî piştî hilbijartina 12'ê Hezîranê tevî mezintirîn kirîza siyasî a xwe ber bi rû ye û hêdî hêdî rewatî û meşrûîyeta wê diçe bin pirsiyarê.

Çunku parlemantarên ser bi BDP'ê baykota parlemanê û herweha nûnerên pertiya Komarî a Gel (CHP) jî baykota sondxarinê kirine û her yek ji wan merca serbest berdana nûnerên hilbijartî ên xwe ji girtîgehan û vegerandina mafê perlemantariya Hatîb Dicle bo betalkirin û şikandina boykota xwe diyarî kirine.

Her yek ji bilûka Ked, demokrasî û azadiyê û partiya Komarî a Gel sedema serhiladana vê kirîzê bi siyasî dizanin nek bi yasayî; û bawer in ku partiya desthilatdar a AKP'ê li pişt vê kirîzê ye û dixwaze hejmonî û desthilata xwe bi ser hemû beşên welat de bisepîne.

Ji ber ku li gor yasayê riya derbazbûn ji vê kirîzê heye û dikare vê pirsgirêkê li parlementoyê de çareser bike. Her wek eva ku li sala 2002'an de bi sedema biryarek siyasî ve, Erdoxan nedikarî bibe serok wezîr, lê li Parlemanê de ew yasa hat guherandin. Yan ewa ku li çend salên derbasbûyî de pêwendî bi dosyaya daxistina AKP'ê ve hebû, Erdoxan radigihand ku eva destdirêjî ye bo ser vîn û îradeya gel û biryara han tam siyasî ye.

Lê niha em dibînin li meseleyek hawşêwe de xwe ji çareserkirina wê didize û serbarê wê ku tu berpirsatiyê nagre stûyê xwe, herweha dibêje ku tenê riya rexne û gazindeyan bo vê biryarê vekirî ye û ew biryarek tam serbixwe ye û gelek bi bêminetî radigehîne ku parlemento dê bêy boykotçiyan karên asayî yên xwe bidomîne. Pirsiyarek ku vir de ber bi rûyê AKP'ê û hikûmeta wê dibe, ew e ku çima berî birêveçûna hilbijartinê mafê berbijariyê ji wan nedihat standin? Çima piştî wê ku bi dengê rewa ên xelkê hatin hilbijartin, ew maf ji wan hat zewt kirin? Erê gelo eva xincî lîstin bi îrade, vîn û dengê xelkê tu manayek din heye?

Ji hêla din ve jî derheq standina mafê perlemantariya Hatîb Dîcle de serbarê zext û givaşên AKP'ê bo ser dezgeha bilind a hilbijartinê, doz û nerazîbûna wê partiyê jî bûye sedema dûrxistina wî û paşan jî cihgîrkirina berendamek jin a ser bi partiya xwe li şûna wî ku tenê niviya dengên Hatib Dîcle bidest xistibûn. Lewma gorî vana mirov hîs dike ku li vê kirîzê de zêde AKP berpirsiyar e û zêdetir bêhna biryara siyasî dide heya ku yasayî.

Bi her hal ger rewş her wiha bimeşe û baykot jî weke reaksiyonek sivîl berdewam be, li gor yasaya hilbijartinên Turkiyê li deverên baykot kirî de biryara hilbijartina ser ji nû ve li midehê 90 rojan de dê bihê dayîn.

Li vê derheqê de eva ku dikewe stûyê kurdan, ya baş ew e ku xwe biparêzin ji her terze dijkiryar û reaksiyonek tund û tûj û dirêjî bi xebata siyasî û medenî a xwe bona misogerkirina mafên xwe bidin; û çi hincetan nedin destê şovenîst û statûkparêzan, ji ber ku zêdebûna hejmara kursiyên kurdan li perlementoyê de vê carê gelek alî heyrîmayî û nîgeran kirine, lewma difikirin ku çawa dubendiyê bixin nava girûpa kurdî, daku him bilûkê şeq bikin, him jî wan ji xebata siyasî û parlemanî dûr bixin û ber bi metodên şidetê ve han bidin.




Rastî jî ew e ku li vê derheqê de ew ji tu hewleke fitnegêriyê xemsariyê nakin. Ji ber wê ku bilûka ked, demokrasî û azadiyê, eniyek pirrengî û pir pêkhateyî ye û ji kurd, tirk, çep, kemalîst û îslamiyan pêk tê û îmkan û zemîneya afirandina dubendiyê jî li nav wan de bihêz e. AKP jî bona wê ku hejmara korsiyên wê bi qasê hewce ninin û nikare li parlementoyê de bi tena serê xwe guhertinên hewce derbas bike û pêwîstî bi korsiyên din jî heye, lewma renge li boseya ji hev belavbûna girûpa kurdî de dilê xwe xweş kiribe!!

Lewma kurd divê hişyar bin û her wekî heya niha bi hewl û xebatên xwe derfet û zemîneya xebata siyasî roj bi roj ji xwe re misogertir kirine, niha şûnde jî bo parastina wê deskevtê û herweha bidest xistina deskeftên mezintir , divê tekez û pêdagiriyê li ser xebata sivîl û siyasî a xwe bikin û vê pîlanê jî her wekî yên derbasbûyî bi qazanca gel pûç bikin û avek sar birijînin ser destê şovenîst û neyarên xwe.

# Serdeşt, birînek xedar û jibîrnekirî

Arîn

Pûşpera 1366'an a Serdeştiyan biferq bû li gel hemû roj û mehên salan, Kele kela şerê Îraq û Îranê dagirtibû bajarê kirr û mat, tirs ji bombe û balafirên dujminan, veşargeh û jêrzemînên malan pirr ji sivîl û zarok jî li hembêza dayîkan, çavnihêriya bombeyan bibû para wan, nihêrtinên watedar li çavên wan, xembarî û perîşanî li rûçikê wan, çengên dilkutok û strêsê li ser dilê wan, hêsirên dilşevitînê li ser rûmetan, nifir û duayên kalan li ser zaran diketin berguh mîna gulleyan, miraz û jivanên ciwanan her di dilan, tawên xatirxwastinê ketibû hinawên gelekan, ji ber ku ferman e li ser kurdan.

Bêdengî şikest û dujminên hov, dagîrkerên nemirov, xwînxwarên bêwijdan ku li serkuta tevgera kurdistan hevpeymanan, Serdeşta cuwan û bûka nîştiman kirin qada şer, kerb û kînan, hênikî û dilrevînî a Serdeştê revandin û dûkel, agir û şîmyayî bi ser de barandin.

Kurdistan wêran û kurd qurban, zarok sêvî û bêxwedan, nalîna dayîkan birin erşê asîman, hawar û qêrînên bêwestan ên birîndaran ji şewat û derdên bêderman, evîndarên bêyeman û cismên bêxwedan û bêrih û can, lêvên hişik û şeqşeqbûyî ji têhniyan, çavên bihesret ji rizgarî û azadiya kurdistan;

**ax sed hewar ji destê bêbext û tarîperestan**

Kela dilê xwe rijandin li ser jin û mêr û zarokan, bi hezaran kes kirin qurban û nefesek dirêj kêşan, bêhnek baş vedan û bi xatircemî razan, Xem û kesera herî giran bêdengiya cîhaniyan, xemsariya mirovdostan û bêhelwestiya rojavayiyan, nasnekirina wê weke jînosayd û tawan, lewre jî hirr bûn û hatin haydan dijî Helebçeya mêrxas û egîdan, 5000 pelpelîskên azadiyê bûne nîşan û sembola xebat û berxwedan.







Barê giran dîsan her li ser milê kurdan, lê îrade qahîm wek hesinan, bimoral û serbilind wek çiyan, xebat û berxwedan jî her berdewam. Niha piştî 24 salan hêj birînên bêderman, nesaxên bêyeman, kêmendamên firawan, lênepirsîna çi aliyan, dûriya ji îmkanat û pizîşkan û dadgehî nekirina tawanbar û cînayetkaran, bûye para kurdan, lê li hember de azadiya parek ji gulistan.

Baş bizanin cihê we her li nav dilan, yad û bîranîna we her li hizran, navê we li ser zaran, serê we jî bilind bi qasê çiyayên kurdistan, hey şehîdên nîştiman, hûn namirin tu caran.

# PDKÎ piştevanî ji peyama rêzdar Kebudwend kir



Di van rojên daviyê de rêzdar Mihemed Sidîq Kebûdwend serokê bendkirî yê Rêkxirawa Mafê Mirovan a Kurdistanê ji girtîgehê ve peyameke jêhatî ji kom û civat û mirov û mirovdostan re bilav kir ku têde pêşniyar kiriye ku roja 22'ê Pûşperê salvegera terora Dr. Qasimlo sekreterê giştî yê vî çaxî ê PDKÎ bi destê terorîstên rejîma Îranê wek roja eyankirina bêzariya ji terorîzma Komara Îslamî ya Îranê û tundûtûjiyên dewletî ên vê rejîmê bihê binavkirin. Di vê derheqê de PDKÎ tevî sipas û pêzanîna ji vê pêşniyara rêzdar Kebûdwend û cesûriya navbirî serbarê vê yekê ku di girtîgehê de ye, piştevaniya tewaw ya xwe ji vê pêşniyara bi cî ya navbirî radigehîne û di hemen demê de jî daxwaz ji kom û civat û her rêkxiraweke berevankarê mafê mirovan û sercem partî û aliyên siyasî û azadîxwaz li raserî cîhan û Îranê bi giştî û partî û rêkxrawên siyasî û civatên xelkê Kurdistanê bi taybetî dikin ku piştevaniya xwe ji vê pêşniyarê eyan bikin û ji bo cîgirkirina vê hewlên hêja bidin.

Di gel rêz û hurmetên ducarî ên Kebudwend û hemû ew kesên ku piştevaniyê ji vê pêşniyarê dikin.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**14.04.1390**
**05.07.2011**

# Guhertina rejîma Beşar Esed, kabûsa rejîma Tehranê ye



Ebdulhelîm Xedam, alîkarê berê yê Beşar Esed di hevpeyvînak tevî kanala "Elerebiyê" de got: "Hiloşîna rejîma Sûriyê bandorek xirab û berfireh li ser rejîma Îranê heye. Jiber ku hebûna rejîma Sûriyê baştirîn derfet e bo destêwerdana rejîma Îranê di welatên herêmê de".

Ebdulhelîm Xedam herweha got: "Guhertina rejîma Sûriyê dibe sedema vê yekê ku êdî rejîma Îranê nekare di civînên navnetewî de li ser pirsa Felestînê manoran bide, û rola xwe di welatên Îraq û Lubnanê de bilîze.

Navbirî ku heyamek berî niha tevlî refa neraziyên Sûrî bûye got ku NY erkdar e ku ji hemû alavên givaşê bo berevanî ji xelkê Sûriyê û pêşîgirtina ji kuştina neraziyan mifahê wergire.

Rojev

# Terora Herîrî û sêkoçkeya terorîzmê

**Senar hatemî**

Piştî şeş sal lêkolînan bi ser terora Refîq Herîrî, Serokwezîrê berê yê Lubnanê ku li 14'ê Fêbruariya 2005'an de canê xwe ji dest dabû, aqibet dawîn dadwerê NY li dor wê dosyayê çend rojan berî niha rapora karê lêkolîna xwe radestî dozgerê giştî yê Lubnanê kir.

Di rapora navhatî de çar kes ji endamên Hizbulaha Lubnanê hatine tawanbar kirin ku yek ji wan Mustefa Bedredîn, berpirsiyarê operasiyonên leşkirî yê Hizbulahê ye.

Eve jî li halekê de ye ku hêj hûrdekariyên wê raporê nehatin eşkere kirin û carê nahê zanîn ku xincî Hizbulahê, gelo dê îşare bi navê Sûriye û rejîma Îranê jî bihê kirin yan na? Lê her ji niha ve ew du piştewanên terorîzmê tengaw bûne û lez û bez helwesta xwe eşkere kirin û bi tundî êrîş kirine ser vê dadgehê û ev dadgeh bi siyasî û bêhitbar dan zanîn. Herweha ragihandin ku ''Amerîka ji ber wê ku li Lubnanê de serneket, ew senaryo birê xist û tu kes guh nade vê lîstika siyasî''.

Herweha Hizbulahê jî reaksiyona xwe nîşan da û ragihand ku bi tu awayî hevkariya vê dadgehê nake û endamên xwe jî radestî wan nake.

Eve jî li halekê de ye ku her yek ji Hizbulah, rejîma Îranê û Sûriyê bi awayên rasterast û nerasterast daxwaza sekinandina pêvajoya vê dadgehê kiribûn û her ji ber wê sedemê jî bû ku hikûmeta Seid Herîrî hat hiloşandin û hikûmetek din li bin utorîte û hejmoniya xwe de anîn ser kar.

Meseleya terora Refîq Herîrî, yek ji girîngtirîn pirsên alozîxulqên ên Lubnanê ye, welatek ku ceribîna şerek 15 salî ê hundirî heye û hêj jî destxwşê tund û tûjiyên berbilaw û dijberiyên mesebî li navbera Şîe û Suniyan de ye. Refîq Herîrî bi xwe alîgirê rojava û ji dijberên rejîma Sûriyê û Hizbulahê bû û terora wî bûye sedema guhertina gelek hevkêşeyan li Lubnanê de û bi taybetî ku bûye sedema derxistina Arteşa Sûriyê li wî welatî û dawîanîn bi dagîrkariya 29 salî a wê arteşê li deverên stratejîk ên Lubnanê.

Niha jî gelek ji hevalbendên Herîrî û sunî, rejîma Sûriyê bi berpirsiyarê terora wî dizanin.

Rapora han li vê zirûfê de dikare ji çend aliyan ve bandor hebe û bibe sedema afirandina kirîz û nîgeraniyan bo piştewanên terorîzmê.

- Li Lubnanê de dikare bandora xwe hebe û rewşek dijwar ji bo serokwezîrê niha yê Lubnanê û hevalbendên wan pêk bîne. Ew divê pabend bi pîvanên navnetewî bin û hevkariyên hewce bi dadgehê re bikin û ewa jî dikare rûpelek nû ji dîroka siyasî a Lubnanê vede, lê gorî pêşhate û zirûfêê ew yek carê nemumkin diyar e.

- Hizbulah weke rêxistinek siyasî-leşkirî a terorîstî zêdetir dê bikewe bin çavdêrî û dorpêçên navnetewî.

- Serbarê Hizbulahê, dê qirik û pêsîra Sûriye û Îranê jî bihê girtin. Eva jî li vê rewşa siyasî a aloz li her du welatan bi taybetî li Sûriyê de, dê rewşa wan aloz û dijwartir bike. Ji ber ku ew daxwaz li qonaxek hesas de hatiye derkirin, qonaxekê de ku rejîma Esed bi nerazîbûnên berfireh yên demokrasîxwazî û zext û givaşên navnetewî re bona tepeseriya meşvanan ber bi rû ye. Li vê navberê de çarenivîsa Sûriyê him ji bo rejîma Îranê û him jî ji bo Hizbulahê pir girîng e û bi hemû awayekê hewil didin sêkoçkeya xwe ya şerûdî û terorperweriyê biparêzin û bihêztir bikin.

Eve jî li halekê de ye ku Ebdulhelîm Xedam, Cîgirê berê yê Beşar Esed ku niha li surgûnê de dijî, daxwaza destêwerdana NY û mifahstandina ji hemû alavên givaşanînê bo ser nîzama Sûriyê li dor pêşîgirtina ji kuştara xelkê Sûriyê kiriye. Herweha daye zanîn ku sernixûniya rejîma Sûriyê dikare encam û pêşhateyên siyasî ên dijwar ji bo hevalbendê wê yê Îranî bi dû xwe re bîne û hikûmetên Sûriye û Îranê jî êdî nikarin li dor pirsa Filistînê manor û lîstikan bilîzin. Lubnan jî dê li bin nifûza wan de derkewe û herweha êdî nikarin rolekê li Îraqê de bilîzin.

Li vê navberê de mirov dikare bibêje ku pêtir ji hemûyan, rejîma Tehranê nîgeranê rewşa Hizbula û Sûriyê ye û pêtir ji hemûyan jî ew zirarê dibîne, çunku ew pir û mertala şerûdiya Îranê û alozî û terorîzma





# Îtiyad pirsek aloz û malwêranker



Sadiq Vehdanî

Rengek reş ketiye rûyê wan, demekê serxweş û xweşhal in, demek din bêhal, nîgeran û tûre. Kesên ku heta li gel malbata xwe jî şer dikin û pêwendiyên civakî û jiyana normal a xwe ji dest dane, moitadên ku hinek ji wan bi bê evê ku kesek hay ji wan hebe li kêlega şeqaman û di nav parkan de dimirin. Ew qurbaniyên rewşa civakî û girîngînedana hikûmetan li hember pirsgirêkên civakî û hinek car jî beşdariya hikûmetan li wê cînayetê ne.

Dibêjin tu moitadek di destpêka bikaranîna madeyên hişber bawer nedikir ku tûşî îtiyad be, wate tu kes naxwaze ku bibe bi kesek moitad. Lê çima hinek kes nexwastî tûş dibin.

Îtiyad bi madeyên hişber weke pirsgirêkek civakî, diyardeyek nû ye, helbet bikaranîna madeyên hişber di dirêjahiya dîrokê hebûye, lê bikaranîna wan madeyan bi awayê îroyî û bandora wê li ser civakan, diyardeyek nû ye û ji sedeya 19'ê kete ber bas.

Bi taybetî ji sedeya 19'ê vêdetir madeyên hişber yên nû jî ku di taqîgehan de çê dibin, tên bikaranîn, bi wateyek din bikaranîna modern ya madeyên hişber, ku yek ji karesatên nû yên modirnîte ye. Madeyên nû weke "Kirak", "Şîşe", "Êxtazî" û ... ku rewşa giştî ya îtiyadê ji bikarnîna "Sûnetî" bi bikaranîna "Modern" guhertiye.

NY li sala 1950'î di civînek taybetî di vî warî de diyardeya îtiyadê bi vî awayî pênase kir: "Girêdayîbûna kesek bi dermanek siroştî yan kîmiyayî ku kes û civakê tûşî xisar dike".

Bi giştî her dermanek bandorek taybet bi xwe li ser mêjî heye, madeyên hişber jî bi pênaseya nû ya navnetewî weke derman tê naskirin, dermanek ku li bin çavedêriya dezgehên pizişkî û saxlemî de dibin bi dermanên pizişkî û bi awayek kontirolkirî hinek nexweşiyan tên tecwîzkirin. Lê gava ku madeya hişber bo armancek xincî armancên pizişkî û berdewam bo heyamek kurt bihên bikaranîn, mikanîzma kiriyara mejiyê têk dide û bi bê bikaranîna wan madeyan mirov nikare bi awayek normal jiyan bike, wate tûşî êtiyadê dibe.

Di sala 1987'an de li bajarê "Viyen", konferansek navnetewî bi navê "xebat li dijî madeyên hişber" hat lidarxistin ku di nav wê konferansê de hinek xalên bingehîn weke rêbaza xebat li dijî wan madeyên hatin pesendkirin. Weke dijberî li gel qaçaxçiyên navnetewî, pêkanîna sîstemek perwede di vî warî de ji bo pêşîgirtin û ...

Îtiyad mijarek aloz e û bi mêzekirina çend aliyane em dibînin ku sedemên tûşbûna mirovan bi itayd pirr in, sedemên giştî pêk hatine ji : Sedemên civakî, siyasî, abûrî û ...

Rewşa nexweşperwer a civaka Îranê, bi xwe yek ji rêxweşkerên tûşbûna mirovan bi wê nexweşiyê ye. Û hinek kes bo revîn ji rastiyan û givaşên cur bi cur ên derûnî, ber bi aliyê madeyên hişber diçin. Madeyên ku bo çend demjimêran mejiyê wan asûde dike û wan ji rastiyên nexweş ên jiyana xwe dûr dike, lê piştî çend demjimêran û bi tewawbûna bandora wan madeyan, dinya li ser serê wê/wî xirab dibe û xincî pirsên jiyana xwe pirsgirêkek din jî ku hemen peydakirin û bikaranîna madeyên hişber e zêde dibe.

Hebûna kesên zaf bi wan taybetmendiyên baskirî li Îranê, bûye sedema vê yekê ku pirsa îtiyad weke pirsek bingehîn ya civakî di Îranê de bê hesibandin, pirsgirekek ku bi xwe çavkaniya gelek ji pirsên din yên civakî ye. Weke telaq, dizî, pirsgirêkên malbatî, tevlîhevbûna pêwendiyên civakî û gelek pirsgirêkên din.

Ji aliyekê din ve kesên moitad bi hegera rewşa xirab a derûnî û şiyanên kêm ên xwe, kesên berhemker ninin û tenê tiştan bikar tînin ku di warê abûrî de him xwe û him civakê tûşî xisar dikin.

Îran yek ji welatane ku amara îtiyadê gelek li jor de ye, pêtir ji yek li ser çarê ya Teryak û "Moşteqatên" wê di Îranê de tê bikaranîn. Yek ji faktorên bidestxistina asta êtiyad di welatekê de, navinciya dema bidestxistina madeyên hişber e, bi vî awayî ku her çiqas dema bi destxistina wan madeyan kurttir be asta îtiyadê jî pêtir e, di Îranê de navinciya dema bidestxistina madeyên hişber 15 deqîqe ye, eva di demekê de ye ku li welatek weke Almaniya dema bi destxistina wan madeyan zêdetir ji 2 demjimêran e.

Eva nîşanderê vê yekê ye ku madeyên hişber li Îranê gelek rehet û di demekê kurt de tên bidestxistin. Herweha di nav teverom û buhabûna hemû alav û tiştan de, tenê madeyên hişberên ku giran nebûne û di hinek deman erzantir jî dibin.

Amarên kesên moitad li Îranê cur bi curin ku dilxweşkertirîna wan amaran ji aliyê rojnameya "Gardiyen" ve hatiye ragihandin. Li gor amara rojnameya "Gardiyen" ji her 17 kes 1 kes li Îranê moitad in.

Hinek ji amarên din jî bas ji moitadbûna %10 ji heşîmeta Îranê dikin. Herweha di wan 15 salên dawiyê de temenê moitadên Îranî hatiye xwarê û nêzîk bi %40 ji moitadan di Îranê de temenê kêmtir ji 20 salî hene.

Bêguman rejîma Komara Îslamî ji rewşa han haydar e. Lê hinek heger hene ku rejîm naxwaze pirsgirêka îtiyadê bi awayekî bingehîn çareser bike. Cînaretiya mezîntirîn berhemênerê Teryak di cîhanê de wate Efxanistan û hebûna Qazanca bi Milyardan ji qaçaxa madeyên hişber karbidestên rejîmê han daye ku bi xwe karê beşekê mezin ji wan qaçaxan bikin. Herweha carna tê bihîstin û dîtin ku kesên girêdayî bi rejîm karê belavkirina madeyên hişber di nav xelkê de bi stû digrin.

Rejîmek ku bi bê exlaqiyek tewaw bi vî awayî ji diyardeya îtiyadê di warê qaçax û bazara navxweyî li Îranê de mifah werdigre, çawa dixwaze dijî wê xebatê bike?

Me amaje kir ku mijara îtiyadê mijarek aloz e û xebakirin li dijî wê jî hewcehî bi karên bingehîn heye.

Bi awayek giştî du şîwe bo xebakirin li dijî diyardeya êtiyadê ji aliyê hikûmetên cîhanê de tên bikaranîn: 1. Xebata nîzamî û polîsî 2. Xebata çandî

Her çend mehan carek nûçeyên îdamkirina qaçaxçiyên madeyên hişber ji virde û wirde yên Îranê tên bihîstin. Îdamên ku Komara Îslamî îdia dike bo xebat li dijî madeyên hişber in. Lê em dibînin ku îdamên han hertim di dema tevlîhevbûna rewşa siyasî ya Komara Îslamî tên encamdan û bêguman armanca rejîm ji wan îdaman bo çêkirin û paqijkirina rewşa civakî ya Îranê nine û tenê rûyê direndeya rejîmê di warê mafê mirovan eşkere dike. Ji aliyek din ve gava ku bas ji xebata polîsî li dijî madeyên hişber dikin mebest îdamên xelkê nine jiber ku îdamên berfireh tu car nabe sedema normalbûna rewşa civakî.

Herweha gava ku bas ji xebata çandî dikin, mebest danîna sîstemek perwerde ya usûlî di vî warî de bo vê ye ku pêşî ji daxwazkirina mirovan bo bikaranîna wan madeyan bigrin. Lê civaka Îran pitansiyêla pejirandina her diyardeyekê xirab yê civakî heye û her roj ku diçe li hejmara moitadan zêdetir dibe.

Komara îslamî bas ji xebat li dijî madeyên hişber dike lê temenê kesên bikarêneran kêmtir dibe, yan bikaranîna wan madeyan di nav zanîngehan de geşe dike û me tu nîşaneyek ji baştirbûna rewşa civakî di warê îtiyad de nedîtiye.



# Hicab alavê tepeseriya jinan di Îranê de



Rêbwar Fanî

Peyva "Hicab" di çanda Îslamî de dikare ji du dîtingehan ve bihê şirovekirin. Yekem hicabek tewaw û sunetî ku li ser jinan de hatiye sepandin. Duyem hicabek normal ku li gor urfên civakî yên welatekê ye. Misilmanan bi giştî li ser hewcebûna hicabê bo jinan nêrînekê yekgirtî tuninin.

Di Quranê de jî peyv yan gotinek sed ji sedî ku awa û şêweya hicabê bo jin û mêran diyarî kiribe tune ye û tenê amaje bi lixwekirina kincek normal û munasib kiriye. Pirsiyar ev e ku çima di hinek ji welatên Îslamî weke Endûnizî yan Turkiyê û çend welatên din yên Erebî de hicab bi awayek êxtiyrî û ne bi neçarî ye, lê di welatên weke Îran û Erebistanê de hicaba bi zorî heye. Mijara hicaba bi zorî di nêrîna pirraniya xelkê cîhanê de zulmek nemirovane li ser jinan tê hesibandin.

Rejîma Komara Îslamî xelkê di warên siyasî, olî, çandî û netewî de çewsandiye û wan qurbaniyê siyasetên pawanxwazane û radîkal ên ên xwe kiriye, lê jin di Îranê de qurbaniyên serekî bûne.

Wate nîviya nifûsa Îranê piştî sala 1979'an ji mafên sereke yên xwe ku hinek ji wan mafan di dirêjahiya çend deheyan berî şoreşa gelên Îranê bi dest xistibûn bêpar man û bûn qurbaniya siyasetên bi ferq û cudahî di warê cinsî yên Komara Îslamî, ku eşkeretirîn siyaseta bi ferq ya rejîmê, sepandina hicabê bi awayekî zorî li ser jinên Îranî ye. Bi sepandina hicabê, desthilatê hewl da ku li ser jin û riftarên civakî ên wan kontrol hebe, herweha di rewşeke han de jin di kiriyar û yasayan de weke hevwelatiyek pile du hatin hesibandin.

Hicaba bi zorî çand nine, belkî mijarek îdeolojîkî û sepandî bi ser xelkê ye û di rastî de nêrîneke nesax a cinsî derheq jinan e.

Siyasetên teblîxatî û perwerdeyî ên Komara Îslamî jî li ser buha û erzişên jinavçûyî û paremayî hatine darêtin û di vê sîstemê de jî ji her riyekê ve mifah werdigre. Pîlanek nû ya rejîmê ku pêtir weke henek û pêkenokan e, çêkirina kartên hicabê ye, kartên ku jinên bêhicabê cezayê nexdî dike.

Hicaba bi zorî bi awayekî rasterast tevî mafên hevwelatî (şaristanî) pêwendî heye û di yekem qonax de azadiya mirov li ser leş û bedenê xwe binpê dike.

Mijara "Keşfa hicab" li sala 1314'an a Rojî ku ji aliyê tebeqeya sunetî a Îranê ve bi tundî hat mehkûmkirin, lê bo guhertina rewşa jinan di Îranê de rêxweşker bû. Civaka Îranê piştî heyamek ji wê biryarê, hînî çandekî nû bûn û ev destkevtek baş bû bo jinan, lê bi desthilatdariya rejîma Komara Îslamî de ji dest çû.

Lê tiştê ku li vir girîng e ev e ku hicab weke çandek pesendkirî ji aliyê xelkê Îranê nayê hesibandin û rejîm tenê ji riya zorê ve kariye hicabê bi ser xelkê de bisepîne.

Her sale bi taybetî di destpêka demsala germayê de rejîm çalakiyên xwe di vî warî de destpê dike û bi hezîneyek pirr di warê abûrî û teblîxî û bikaranîna hêzên polîsî yên xwe dest pê dike. Îsal jî bi awayek berfireh xebat li dijî azadiyên civakî destpê kiriye û rejîm ji her cure riftarek nemirovane bo sepandina nêrîna xwe mifah werdigre.

**Jêder:** Wikipedia, the free encyclopedia
www.kayhanlondon.com




## Hejmara girtiyan di Îranê de çar heya heşt hemberî cihê normal yê girtîgehan e




Qulamhusên Îsmayîlî, berpirsê giştî yê girtîgehên Îranê got: Di girtîgehên Îranê de cihê 55 hezar girtiyan heye, lê niha zêdetir ji 220 hezar girtî di girtîgehên Îranê de hene.

Herweha Yûnis Mûsevî, endamê komîsyona dadperweriya meclîsa Îslamî ragihand: "Hejmara girtiyan li Îranê çar heya heşt hemberî cihê normal yê girtîgehan e". Hêjayî gotinê ye di yeksal û nîva derbasbûyî de nêzîk bi %20 bi hejmara girtiyan li Îranê zêde bûne.

## Cudakirina keç û kuran di zanîngehên Îranê de dest pêkir



Komsyona Perwerde û Lêkolîna meclîsa rejîmê ragihand: Jiber kêmkirina asta pêwendiyên navbera keç û kuran di zanîngehên Îranê de, em bi her awayekî hewl didin û siyaseta cudakirina keç û kuran bo malbatan, meclîs, ol û herweha ji bo alîgerên hikûmet û rêberên olî dê bihê birêvebirin. Heya niha di çendîn zanîngehên Îranê weke zanîngeha "Senetî Şerîf", "Elamê Tebatebayî", zanîngeha "Qezvîn" û "Mazenderan"ê de terha han hatiye birêvebirin. Komara Îslamî di çend salên derbasbûyî de berdewam bas ji hevahengkirina zanîngehan tevî usûlên Îslamî kiribû.

## Jinên cixarekêş yek Milyon tûmenî tên cezadan

**Li gor terha nû ya Polîsê ewlehiya civakî a rejîmê, ew jinên ku di cihên giştî de cixarê bikêşin, yek Milyon Tûmenî dê bihên cezadan.**

Di doma serkutkirina jinên Îranî ji aliyê rejîmê ve, polîs çalakiyek berfireh li dijî jinên "Bed hicab" dest pê kiriye û bo wan jinan cezayên nexdî ên 5 heya 50 hezar Tûmenî diyarî kirine.

Ji destpêka desthiladdariya dewleta Ehmedînijad, hikûmetê gelek terh bi navên "ewlehiya civakî" û dijberî li gel "Bed hicaban" birêve birine û di 6 salên derbasbûyî de bi hezaran keç û kurên Îranî destbiser bûne.

# Teblîx bo çanda îslamê yan teblîx bo çanda Komara Îslamî



Ceifer Mubeşirniya

Piştî ku melayên kevneparêz bi serokatiya Xumênî xwe bi ser behre û berhemên serkevtina şoreşa mezin a gelên Îranê ya zivistana sala 1979'an de sepandin, di destpêka Tîrmeha sala 1981'an de, bi fermana Xumênî navendek hat avakirin bi navê Navenda Şêvra Bilind a Teblîxa Îslamê.

Deqa pênaseya vê navendê ji aliyê damezirînerên vê ve wuha hatiye ziman: "Navenda Şêvra Bilind a Teblîxa Îslamê bi armanca rêkxistina hêzên oldar û tex û qatên xelkê di pêxema teblîx bo çanda dîroka Îsalmê li hember êrîşa çanda dujminan ku di pêvajoyên hesas û metirsîdar ên ku dujminên Îslamê bo tunekirina şoreşa Îslamî û çanda îsalma Nab a Mihemedî xebat dikirin, hat avakirin û destbikar bûn".

Berî her tiştî hewce ye ku bihê gotin, pêka ku Komara Îslamî ji her aliyekê ve pêdagiriyê li ser teblîxa îslamê di Îranê de dike, wa nîşan dide ku Xumênî bi avakirina rejîma Komara Îslamî bingehdanerê îslamê di Îranê de bûye.

Ewa di halekê de ye ku xelkê Îranê di dema xelafeta Omerê kurê Xetab ve heya niha musilman in û her ew musilaniye jî bû ku Xumênî bi derfet zanî hizrên xwe ên genî bixe qalibê îslamê de ku bi navê edaleta îslamî di nava xelkê zulmdîtî ji destê rejîma paşayetî bigîje kopika desthilatê û bi avakirina navendek bi vî navî her weke di naveroka pênaseya vê de hatiye berî îslamê -şoreşa îslamî- biparêze.

Ji raya giştî re hewce ye ku bihê şirovekirin, her dema ku rejîma Komara Îslamî bas ji Şoreşa Îslamî dike, mebest ji şoireşa azadîxwazane a gelên Îranê ye ku vê rejîmê bi talan bir û pêvajoya hizrên xelkê bi arasteyek din a şaş de bir û navê Şoreşa Îslamî li ser danî û bêguman parastina şoreşa îslamî bi wateya parastina Komara Îslamî tê.

Di vî halî de, siroştî ye ku dema rejîma han xwe bi bingehdanerê îslamê di Îranê de û nûnerên îslam û xweda li ser erdê dizane, rewayiyek tewaw dide dezgehên hikûmeta xwe ku ji bo parastina Komara Îslamî ku rejîm bi parastina şoreşa îslamî nav dibe, her şîwe kospxistne ser riya xelkê û bertengkirina meydana çalikiyên çandên cuda cuda ên gelên Îranê ku encama wê cinayetên rojane ên Komara Îslamî li ser xelkê jê peyda bû, xwe neparêzin.

Lewma tevî bikarxistina navenda Teblîx Bo Îslamê ku di naverokê de teblîx bo Komara Îslamî ye, tev dezgehên ragihandinê xistin xizmeta vê teblîxê bi taybetî di warê çandî de çimku bi raya rayedarên rejîmê her yek ji çandên cuda ên netewên Îranê bergirtî ji çanda biyanî û dujminan in, eva jî di halekê de ye ku çanda destkird a Xumênî çandek nû û biyanî bû ku xwe bi ser xelkê Îranê de sepand, bi qorixkirina tev kenalên ragihandinê, ji televîzyon û radyoyan heya rojname û belavokên ku di rastî de gerek di xizmeta hişyarkirin û gihandina zanyariyan bi xwelkê de bin, dezgehên ragihandinê ên seranserî welat yekdest erkdar bi belavkirina meramên xwe kirin bo zêde qorixkirina desthilatê.

Ji aliyek din ve jî her di pêvajoya gihandina peyama Xumênî di riya vê navendê ve di warên din ên çandî de hejmarek zaf a huner û hunermendan ji navbirin yan neçar bi cihhêştina welat kirin. Eva jî hişdariyek bû bo gişt xelkê Îranê ku dirêjî bi pirsên çandî ên resen û nû nedin, xêncî çanda Komara Îslamî.

Di yekemîn peyama xwe de bo wê navendê, Xumênî dibêje: "Ez hêvîdar im ku bi hewlên berdewam û bi mifahsitandin ji hemû hêzên bawermend bi Îslamê bi înqilab (şoreş) û îslamê, vî karê girîng birêve bibin û herweha di çarçoveya vê yekê ku nîzam di armancên xwe de micid e, dema di metirsîketina buhayên îslamê de, di her zirûfekê de be emê bi tundî riftar bikin".

Di rastî de cinayetên salên destpêka bidesthilatgihîştina Xumênî di Îranê bi taybetî Kurdistanê de, sozek bû ku Xumênî bi cih anî bi bê evê ku xelk gavek jî ji ola xwe dûr ketibe.

Lê dema ku Xumênî mifaha xwe ji îslamîbûna xelkê wergirt û cihê pêyê xwe di desthilatê de qahîm kir, bi fermanek xwe a nû bo gihîştin bi armanc û naveroka eslî a vê navendê, navê Navenda Teblîxa Îslamê di 14'ê meha Xakelêwe a sala 1368'a Rojî de guherand û kir Navenda Teblîxa Şoreşa Îslamî. Ku eva jî tu gumanek tê de nahê xuyakirin ku teblîx bo îslamê û teblîx bo şoreşa îslamî wate Komara Îslamî a Îranê li gorî fars dibêjin: "Kuca merheba".

Pêka ku Komara Îslamî piştî 33 salan Xumênî bi çavkaniya rewatiya xwe dizane û ev gotinên Xumênî jî weke dilopek ji deryaya fermanên cinayetkarane ên wî ne, bêguman her liv û şîweya jiyana xelkê ku bi dilê desthilatdarên rejîmê nebe, ji hemen çavkaniyê rewatiyê dide wan cinayetan ku ji wan re ferman û erk e, ger wa nebe ji rêbaza Xumênî berxwar bûne.

Wusan xûya ye ku dezgehên serkutker ên rejîmê gelek bi dilê Elî Xamineyî Rêberê niha yê Komara Îslamî kar kirine û dikin. Lewma di pêwendî li gel vê navendê de navbirî dibêje: "Birêveberên Navenda Teblîxa Şoreşa Îslamî yekgirtîtirîn û bilindtirîn kes in ku me di dirêjahiya dîroka xwe de hebûne".

Her di vê derbarê de, Xamineyî memûr û balyûzên xwe di şibîne pêxemberên xweda û raya wî eva ye ku her weke xweda ol şandin ser erdê, pêxember jî ji bo teblîx û çavdêrîkirin ji wan olan re memûr kirine, pêtir ji caran balyûz û tew dardestên xwe memûr û erkdar dike ji bo pêtir teblîxkirina ji -şereşa îslamî- wate Komara Îslamî re.

**Encam**

Li gor şiroveyên Komara Îslamî, teblîx bo çanda îslamê hat guherîn bo teblîx bo çanda destkird a Komara Îslamî û hewlên rejîmê bo jinavbirina çandên netewên Îranê bo çirkeyekê jî nesekinîne. Kanalên ragihandinê yekdest di xizmeta teblîxa Komara Îslamî de ne, menberên mizgevtan bûne tirîbûnên siyaseta vê rejîmê, kar û barên hunerî yan teblîx bo rejîma wan in yan jî di jêrzemîniyan de dihên encam dayîn, Mûzîk mir, sînema hat pavankirin, urf û edetên netewan weke tawan têne hesibandin.

Her nebe Xamineyî û peyrewên wî, vê yekê dizanin ku yek ji şanaziyên serkevtina ola îslamê banga Ellah Ekber ji aliyê Bilalê Hebeşê ve di qundikê de hat qîrandin. Gerek vê yekê jî bizanin ku banga azadiya ciwanên gelên Îranê di jêrzemîniyan de dê toza mendîlên wan dakute û bihavêje kirsdana dîrokê de û îslama ku Komara Îslamî a Îranê bi pênaseya xwe bi ser xelkê de sepandiye, dê pîrozî kifnên wan bikin.





# Dengê Hesen Zîrek tucar namire

A: Kewêzer

39 sal bi ser koça dawî a hunermend Hesen Zîrek de derbas dibin, lê hêj deng û ahengên wî zindî û nû ne, niha jî pêvajoya ahengên wî di mûzîka Kurdî û hin mûzîkên biyanî ên derdor de pêlan davêjin û pirraniya caran di nûtirîn mûzîkan de dihên bihîstin. Eeva tenê taybetmendiya meznahiya Hesen Zîrek nine, belkî jiyana pirr trajîdya û şeqeserî a wî hunermendê mezin û xebat li hember taliyên e ku wî di jiyana xwe de kişandine, lê her wa diyartirîn û bibandortirîn kaniya stran û ahengan bû. Lewma di 39 mîn salvegera koça dawî a wî hunermendê navdar yê Kurd de hewce ye basek ji Hesen Zîrek bihê kirin ku tevî taliyên ku di jiyana xwe de kêşandin, lê ev huner bi paqijî parast.

29'ê Novambera sala 1921'an, li gereka Kela Serdar a bajarê Bokanê li Rojhilata Kurdistana, hunermendê mezin Hesen Zîrek çavên xwe ji dinyayê hilînan. Navbirî di temenê 5 saliyê de bavê xwe ji dest da û her di zaroktiyê de tûşî kedek zaf û jiyanek pirr dijwar bû.

Di temenê nûciwaniyê de Hesen Zîrek derbider û aware dibe û heyamek li bajarên Kurdistana Îranê û piştre li Kurdistana Îraqê derbas dike. Pirraniya heyamên jiyana xwe a wê demê li bajarê Kirmaşanê jînek nemir û nejî derbas kiriye. Lê her di wî heyamî de navbirî tevî hunermendên mezin ên bajarê Kirmaşanê weke Mucteba Mîrzayî, Mihemed Ebdulsemedî, Ekber Îzedî û Behmen Yûlkî nasyar dibe û di warê hunera strangotinê de ji hevkariyên wan mifahek baş distîne.

Her çend Hesen Zîrek seba jiyana pirr trajîdya û dijwar ji xwendevariyê bêpar mabû, lê xwedî şiyanek mezin di warê stran gotin û ahengên Kurdî bi raybetî bi dengê zelalê xwe bû.

Hesen Zîrek dema ku li Kurdistana Başûr di mêvanxaneyekê de mijûlî kasibiyê dibe, di dema paqijkirina mêvanxaneyê de ji xwe re distre û mêvanek bi navê Celal Talebanî Serokkomarê niha yê Îraqa Federal li wê mêvanxaneyê dibe û guhdariya strana Hesen Zîrek dike û di keve jêr bandora dengê zelalê Hesen Zîrek û wî dibe beşa Kurdî a radyoya Bexdayê û li wir Hesen Zîrek mijûlî karê hunerî dibe. Heyamekê di wê radyoyê de kar dike û piştre li sala 1958'an dema ku beşa Kurdî a radyoya Teharnê ava dibe, navbirî karê xwe ji bo wê radyoyê vediguheze û di beşa Kurdî a radyoya Tehranê de karê xwe berdewam dike.



Her di beşa Kurdî a radyoya Teharnê de, li gel Medya Zendî bêjera beşa Kurdî a wê radyoyê dizewice û berê wê zewacê du keç bi navên Mehtab( Arezo) û Mehnaz( Sakar) dibin ku Hesen Zîrek çend stran jî pêşkêşî wan du keçên xwe kirine.

Heyamek piştre berpirsên radyoya Tehranê bi riftarên xwe ên nemirovane bi Hesen Zîrek re, navbirî ji karê wî dûr dixin ku ev riftara wan dilê nazik yê Hesen Zîrek wuha dişkîne ku êdî ew nevegere ser karê radyoya Tehranê, bi neçarî car din bi tûrê xemên xwe ve bar dike û diçe Bexdayê. Li wir jî dîsan tûşî gelek pirsgirêkan dikin û wî digrin û bi ban ve girê didin û îşkence dikin. Piştî rizgarbûn ji destên wan gurên rejîma Bexdayê, car din diçe Tehranê û li wir jî ji aliyê memûrên Sawak ên rejîma Paşatî ve dihê girtin û îşkencekirin ku serpêhatiya wan îşkenceyan bi dengê xwe di kasêtekê de tîne ziman.

Piştî wan îşkence û azaran Hesen Zirek li sala 1962 heya 1964'an li bajarê Kirmaşanê akincî dibe û tevî radyoya Kirmaşanê mijûlî karê hunerî dibe.

Salên dawiya jiyana Hesen Zîrek taliyên jiyana wî hunermendê hertim zindî çend qat bûn û tu xweşiyekê bi çavên xwe nabîne. Seba nesaxiyan êdî tucar nikarî strangotina xwe berdewam bike, li bajarê Bokanê qehwexaneyekê ava dike ji bo derxistina bijîva xwe a rojane.

Hesen Zîrekê dengxweş li 26.06.1972'an di nexweşxaneya Bokanê de bi nesaxiyek kujer xatirê xwe ji huner û dinyayê xwest û li ser wesyeta wî li çiyayê Naleşkêne li bajarê Bokanê hate veşartin.

Bilbilê Kurdistanê Hesen Zîrek pêtirî 1500 stran pêşkêşî cîhana hunerê kirine ku ahengên hemû wan stranan bixwe danîne û bi kêmî jî stranên wî ji helbestên kesek din in.

Mirovên mezin hertim navê wan zindî ne, Hesen Zîrek xêncî zindîmana navê wî, ahengên wî niha jî di pirraniya stranên Kurdî, Farsî û Turkî de zindî ne û tên bihîstin û tucar kevin nabin.

Seba wan taybetmendiyên bêmînak ên Hesen Zîrek in ku hunermendê navdar yê Kurd Şehramn Nazirî di pêwendî li gel Hesen Zîrek de dibêje: "Ez tenê dikarim bêjim ku Hesen Zîrek mirovek nabixe bi manaya rastîn a xwe bû. Her dema ku derbasî jora zewtkirinê a radyoyê dibû hevdem helbest vedihûnand, aheng çêdikir û bi dengê xwe jî digot ku heya niha tiştek wusa di hunera mûzîkê de mînak tune bûye. Zêdebarî wê çendê ku Hesen Zîrek nexwendewar bû, mûzîk û helbest bi awayê ezber digotin ku birastî mirovek xwedî şiyana taybetî bû".

*Çavkanî: Malpera Vîkîpedia*

# Sirûda xemê



Gulnar Elî

*Tinê me*
*Bêkes*
*Mûm ronahî dide*
*Taristana şevên biyanî*
*Yadgaran bi rondikan*
*vedimirîne.*
*Di gel toqîna*
*Taristana şevên dirêj*
*dimînim*
*Bi xewê, dê xewa xwe*
*birevînim.*
*Ger mijîlanek*
*ji cavên min neket,*
*dê dengê giriyek hêdî*
*bibihîzim.*
*Li dawiyê min zanî*
*Ew nebez*
*hêj dawiya awaza bû*
*te mişt ba dike,*
*ji bo çavên te*
*sirûda gazinda*
*dinivîse*
*Te ji bîr kir?*
*Yan te bi jibîrkirinê*
*xwe rizgar kir?*
*Te xemla me pêça*
*mîna pêçana pertûkan*
*ez bûm xewn.*
*Di nav domanê de,*
*winda dibim*
*Te xanî li min kavil*
*kir*
*Ma tu nizanî..*
*tu bûyî hêvî*
*û ji bo te*
*min ji jiyanê hez kir,*
*min ji xwe hez kir.*
*Di temenê gencatiyê*
*de,*
*di dil de, tu bûyî evîn,*
*di şevê de ronahî,*
*di bêdengiya min de*
*xem te belav kir*
*Ser perasiyên xwe*
*ciwantirîn*
*wate min ji bo te*
*vekolan.*
*Dara evîna te*
*bi bayê peyvên min*
*naheje..?*
*hevokên qêrînê ji wan*
*dibarin,*
*te nalerizînin?*
*Ji asoyê agirê tu pê*
*pêçay*
*bû baxçê buhêşta min.*
*Tu hez nakî*
*A...............x*
*Ez bûm sîper/ leylan.*
*Te dil kir bajarekî*
*dorpêçkirî*
*Dil girtîxana hêviya ye,*
*ma tu nizanî,*
*yek ji wan hêvîya*
*goristana min singa te*
*bû!?*
*Berhemên dara min,*
*bûn*
*xem*
*azar*
*jan*
*û ramûsanek negihayî*
*Dil dijî, ez pê birîndar*
*Evro ji min dixwazî*
*xemla duhî*
*Çirisîna çav û...*
*Ez li benda xemla te*
*me,*
*kevokek baskokirî*
*di cihê xwe da bêdeng*
*im,*

*rondikan dibarînim.*
*Tu dê di dil da*
*her sirûda xemê bimînî*
*Li benda te deminîm,*
*bawer im dil dê bizivire,*
*ji te hez dikem,*
*gazi te dikem*
*ta xwezî di gewriya min*
*da zîl bide,*
*gula dêmî biçilmise*
*gulav winda bibe.*
*Eger dilê te hişiyar*
*an jî mirî be.*
*Eger tu di derya evînê*
*de*
*melevan an jî mest bî.*

*Eger tu di temenê min*
*de leylan şîn vedî,*
*ji çavên te Peyalek xem*
*bibare*
*dê vexwim.*
*Tu barkey bê*
*xatirxwastin*
*gazinde bimire*
*dê bimînim ..*
*ji te hez bikem*
*ji te hez bikem*
*ta henasên min*
*binax*
*û winda bibin.*

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## Pêşmergeyekî PDK Îranê di bûyerek dilêş de canê xwe ji dest da

Roja Pênşemî, 22 Hezîranê, Kerîm Emînî, Pêşmergeyê PDK Îranê û Endamê Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê li dema geşt û seyranek bikom de li bûyerek nexweş de canê xwe ji dest da û riya pirr ji serwerî a xwe bo heval, hevbîr û hevçeperên xwe re bi cî hişt.

Şehîd Kerîm sala 1386'an a Rojî, pêwendiya nepenî bi PDK Îranê re girtiye û bi awayek çalak û ektîv, erkên hizbî û netewî ên xwe li hindurê welat de birêve biriye.

Navhatî havîna sala 89'an hatiye nav refên Pêşmergên PDK Îranê.



di vê derheqê de behî û serxweşiya xwe ji xelkê Kurdistanê û lawên welatparêz ên Kurd dike û xwe bi hevxemê malbata şehîd Kerîm dizane.

PDK Îran û Yekîtiya Ciwanan

## Li Amedê peykerê Cegerxwîn hat danîn

**Li Navenda Çanda Ciwanan a Cegerxwîn ya li Kayapinara Amedê busta Cegerxwîn hat danîn.**

Di merasima vekirinê de peyama ku Şaredarê Kayapinarê, Zulkuf Karatekin ku ji sala 2009'an ve di girtîgehê de ye şandibû jî hat xwendin. Karatekin di peyama xwe de wisa got:

"Ez di wê baweriyê de me ku, berhemên ku xwendekarên me derxistine holê dê kedeke wan a çandî û civakî ji bo bajarê me hebe. Ji ber vê yekê hevalên me yên di Akademiya Cegerxwîn de dixebitin, dê keda wan pê çêbibe ku çanda me ya tê asîmîlekirin bigirînin pêşerojê."

Paşê Wekîlê Şaredar Mahmut Dag axivî û got ku di sala



2010'an de navenda wan a çandê vebûye û ji wê rojêö de 2 hezar xwendekar beşdarî qursên cur bi cur bûne."

Piştî axaftinan, peykerê Cegerxwîn hate vekirin.

**Diyarname**

## Jiber rewşa xirab a abûrî gurçikê xwe difroşin




**Di Îranê de gelek kes bo çareseriya pirsgirêkên abûrî yên xwe gurçikên xwe difroşin û her ku diçe hejmara wan kesan zêde dibe.**

Li gor amarên navendên saxlemî ên Îranê, salane nêzîk bi 2 hezar û 300 pêwendên gurçik li Îranê de tê encamdan ku tenê 590 ji wan pêwendan gurçikên miriyan pêwend didin.

salane nêzîk bi 1700 kes gurçikên xwe difroşin.

## Sozên Ehmedînijad bi dawî nahên!!! Vê carê bo her malbatek Îranî 1000 Metro erd



**Ehmedînijad serkomarê rejîma Îranê ragehand ku bi her malbatek Îranî wê 1000 Mêtr erd bihê dayîn.**

Piştî sozên derew yên Ehmedînijad weke anîna pereyên neftê li ser sifreyên xelkê, jinavbirina pirsa bêkariyê li Îranê, dana pere bi zarokan û gelek sozên din ku tu yek ji wan pilanan nehatin birêvebirin, Ehmedînijad got ku bi her malbatek Îranî wê 1000 Mêtr erd bihê dayîn.

Ev gotina navbirî di demekê de ye ku 18.5 Milyon malbat di Îranê de hene, wate Ehmedînijad dixwaze 1 Miiyard û 850 Milyon Mêtrên çargoşe bide xelkê, ku ev amar di tewaya bajarên Îranê de cih nagre û renge mebesta Ehmedînijad dana erdê di deşt û çiyayên Îranê de be.

## Îran di pileya sêyemîn a qaçaxa mirovan di cîhanê de ye




**Wezareta karê Derve a Amerîkayê rapora salane a xwe li dor qaçaxa mirovan weşand ku têde Îran di pileya sêyemîn a cîhanî de cih girtiye.**

Li gorî çavkaniyan Îran welatek e ku bûye nuqteya destpêkê, cihê derbasbûn û meqseda mêr, jin û zarokên ku bo karê bi zorî û destdirêjiyên cînsî tên qaçaxkirin.

Zarokên ku di Îranê de tên firotin pitir ji aliyê ajotvanan, melayên "Hewzeyên Êlmiye" û kedkarên Efxanî ve bi buhayekê pirr kêm tên kirrîn. Herweha keç û kurên Efxanî ji Îranê bo welatên din bo destrêjiya cinsî têne qaçaxkirin. Li gor NGO'an, eva di demekê de ye ku Îran ne tenê tu hewlek bo çareseriya pirsa han nedaye, belkî bixwe rêxweşker e bo qaçaxa mirovan û heta hinek ji karbidestên rejîmê jî bi awayek çalak mijûlî vî karî ne. Hêjayî gotinê ye ku Îran di van 6 salên dawî de hertim di pileya sêyemîn a qaçaxa mirovan di cîhanê de bûye.

